# Nerîna Lîderan



Mes`ûd Barzanî: “Kurdistan tenê ye, û bangewaza bo azadiyê bê bingeh e”.



El-cobeyr: “Erebistan di hemberî destdirjiyên rejîma Îranê de bêkar narûnê”.



Enwer Qereqaş:“Îran û Hizbullah sebebkarê serekî ê nearamiyê di navçeyê de ne”.



Hesen Nesrullah: “Me ne mûşekên balistîk, ne jî çekên pêşkevtî, û ne jî çekên din neşandine Yemenê.”.

## Ji bo berbirûbûna digel Tehranê, Amerîka û Firansayê li hev kirin

**Koşka Spî ragehand ku Trump û “Emmanuel Macron” li dijî têkderiyên rejîma Îranê, û riya berbirûbûnê rêkevtin kirin.**

Piştî gotûbêja telefonî a di navbera “Emmanuel Macron” serkomarê Firansayê û “Donald Trump”, serkomarê Amerîkayê koşka Spî ragehand ku: Her du welatan li ser vê yekê rêkevtine kirine, da ku bi hev re, û bi alîkariya hevpêymanên xwe li dijî alozî û şerxwaziyên reîma Îranê û Hizbullaha Lubnanê bisekinin.

Li gora dawîn nûçeyan, biryar e ku di çend rojên din de “Emmanuel Macron” derheqê vê pirsê de digel rayadarên welatên cîhan biaxive, da ku wan jî bikêşa aliyê xwe, û di vê derheqê de navbirî digel “Michel Aoun” serkomarê Lubnanê, “Abdel Fattah el-Sisi” serkomarê Misre, “Mohammad bin Salman” cîgirê paşayê Si`ûdiya û “Antonio Guterres” serkreterê NY axiviye.



Macron di demên derbezbûyî de jî bas ji metirsî û gefên rejîma Îranê kiribû, û gotibû ku dibe derheqê bernameyên mûşekî yên Tehranê gotûbêjan digel wan encam bidin; pirsa ku dijkiriyara rejîma Îranê lê ketiye, û ji serkomarê Fransa yê rê gotine : Ev babeta tu pêwendiyek bi Parîsê ve nîne.

Her di vê derheqê de roja Yekşemî di rêkevta 28`ê Xezelwera 1396`an de, Yekîtiya Ereban di bajarê Qahîreya welatê Misrê de civîneke bilez pêk anîbûn, û gotibûn ku tevî nîşandan nerazîbûna xwe li hember siyasetên destêverdanên Tehranê, di karûbarên welatên deverê de, daxwaz ji Civata Ewlekariya Neteweyên Yekgiritî kirine, da ku gavên bilez û piraktîk li dijî Tehranê bavêjin.

## Rejîm arteşê paksazî dike

**Rejîma Îranê ku niha zêdetir ji her demekê xwe di metirsiyê de dibîne, kesên nêzî hizra Spahiyan dike fermandeyên arteşê.**



Rayedarên rejîmê bo veşartina vê paksaziyê, di dema guherîna fermandeyan de bas ji “hemdilî” û “yekdengiyê” di navbera arteşê û Spahê de dikin.

Fermndeyê nû ê arteşê Ebdulrehîm Mûsewî ku axavtina xwe ya destpêkê bi baskirina ji yekîtiya di navbera arteş û spahê de bas kiriye, diselimîne ku hewla Xamineyî paksaziya arteşê ye ji wan kesên ku naxwazin nêzî spahê bibin. Di kiryareke bêsabiqe de, bo yekem car di nava arteşa Komara Îslamiya Îranê de, çar fermandeyên “hêza deryayî” bûne endamê Sitada arteşê, ku pêştir efserên hêza “bejahiyê” ya asrteşê rola serekî tê de hebûn. Herwisa deryavan Hebîbulla Seyarî piştî deh salan ku fermandê hêza deryayî bû, bo Sitada arteşê hate veguhastin, û bû cihgirê hemahengkirina arteşê. Çavdêr û şarezayên karûbarên leşkerî radigehînin ku dana berpirsayetiyê bi fermandeyên hêza deryayî, û vêdedana fermandeyên hêza bejahiyê û girîngînedana bi fermandeyên hêza esmanî cihê baldan û lêfikirînê ye. Bi taybetî eva ku Ebdulrehîm Mûsewî fermandê arteşê di axavtina xwe de bas ji yekîtiya di navbera Spah û arteşê de kiriye, û ragehandiye her kesek ji zimanê arteşiyan ve tiştenê binûse, ku bibe sedema pêkhatina nakokiyan, çi bizanebûn be, yan berevajî, ew yek dikeve xizmeta dijmin de.

## Îsraîl hebûna hêzên Îranê di Sûriyê de qebûl nake

**Îsraîlê li dijkiryara li hemberî berdewamiya hebûna hêzên rejîma Îranê di nava xaka Sûriyê de, ragehand ku dibe hêzên rejîma Îranê Sûriyê bi cih bihêlin.**

Wezrê Karê Derve ê Rûsiyê Lavrof ragehandibû ku hebûna hêzên Îranî di nava Sûriyê de rewa ye, jiber ku ew li ser îzna Beşar Esed hatine wir.

Di heman demê de Lavrof ragehandibû ku rola hevalbendiya navneteweyî bi rêberatiya Amerîkayê di Sûriyê de ne baş, û ne yasayî ye, jiber ku armanca Amerîkayê piştgiriya ji girûpên dijberî dewleta yasyaî ye.

Nûçegihaniya Îsraîlê “Way Net” axavtinên Lavrof wekî lêdana sîleyekê li ser guhê dewleta Îsraîlê bi nav kir. Hinek ragehandinên din ên Îsraîlê jî ji zimanê kesekî ve ku berpirsekî payebilind ê Îsraîlê bûye, nivîsandine ku Îsraîl nahêle ku xetên sor bêne bezanidn, û hebûna hêzên Îranî di Sûriyê de tab nake.

Li gora nivîsa rojnameya “Yîsrail Hiyom” çapa Tilavîwê, serbarê raporên derheq lihevkirina Amerîka û Rûsiyê, ku piştî şerê di Sûriyê de, hêzên derekî di Sûriyê de namînin, Lavrof ragehand ku hewcehiya derketina hêzên Spaha Pasdaran, û hêzên din ên ser bi Îranê di Sûriyê de di gotûbêja bi Amerîkayê re bas lê nehate kirin.

Berpirsekî Îsraîlî jî ku nexwast navê wî bî eşkerekirin ragehandiye ku: Me bi Potîn ragehandiye ku hekî bezanidna xetên sor ên Îsraîlê bibin sedema berbirûbûna leşkerî bi Hizbullahê re jî, û aloziyan di Sûriyê de çêke jî, ewê vê yekê bikin.

## Pêşmergekî şoreşa 46-47`an çû ser dilovaniya xwe

**Feqî Îbrahîmpûya xelkê bajarê Pîranşerê, li temenê 73 saliyê de çû ser dilovaniya xwe.**

Li gora rapora gihîştî malpera Kurdistanmedia: roja Înê 26`ê Xezelwera 1396`an, "Feqî Îbrahîmpûya", xelkê bajarê Pîranşerê ku di salên 46-47`an de pêşmergê PDKÎ bû, di temenê 73 saliyê de çû ser dilovaniya xwe.

Navbirî piştî serkevtina şoreşa gelên Îranê, digel PDKÎ vegeriya bo Îranê, û di hêza "Mela Aware" de hate rêxstin, û piştre weke kadrekî destpak û cihê baweriyê di gumrika sînorê Pîranşerê de hate rêsixtin. Piştî vê ku Hizb çû aliyê Başûrê Kurdistanê, Feqî Îbrahîm di komîteya bajarê Pîranşerê û navenda Sipîseng de her erkeke hizbê ku pê hatiba spartin, bicî danî, û heyanî sala 1996`an bi sedema rewşa tendirustiyê û nebaşbûna rewşa jiyanê, li ser îzna hizbê vedigere bo hundirê welat û her bi vê sebebê jî neçar dibe dev ji pêşmergatiyê berde.

Feqî Îbrahîm heyanî dawiya jiyana xwe li ser bîr û bawera xwe sor û pêdagir bû, û ji aliyê xelkê deverê ve rêz û hurmeteke taybetî hebû. Termê navbirî di nav girseya xelkê nîştimanperwerê bajarê Pîranşarê de bi axê hate spartin.Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, sersaxiyê dibêje malbat û xizm û kesûkarên navbirî û xwe şirîkê xema wan dizane.

## Dijberekî bibandor ên Komara Îslamî hate terorkirin

**Rêberê "Tevgera Azadîxwaz ya El-ehwaz"ê li pêşberî deriyê mala xwe li Holendê, bi sê gulleyan hate terorkirin.**

"Ehmed Mola Ebûnahiz" naskirî bi "Ehmed Nîsî" roja çarşemiyê hate terorkirin, û kesên nêzîkî wî, rejîma Îranê wekî biryarder û encamderên wê terorê bi nav dikin. Jiber ku li gor gotina kesên nêzîkî wî, rejîma Îranê berê jî hewl dabû ku polîsê navneteweyî, navbirî dersînorî Îranê bikin, û li wir dadgehî bikin.

Komara ÎSlamiya Îranê "Tevgera Azadîxwaz ya El-ehwaz"ê wekî girûpeke terorîstî nas dike. Wê girûpê ji nîveka sala 1997`an ve çalakiyên xwe dest pê kirin, û armanca xwe ya stratejîk jî rizgarkirina Xûzistan, Bûşêhr û Hormozgan û giravên kendawê (xelîcê) ragehandiye. Vê girûpê bawerî bi çalakiyên çekdarî li dijî Îranê jî heye.

Rejîma Îranê ji destpêka deshilatdariya xwe ve heyanî niha bona mana li ser kursiyê deshilatê hawara xwe biriye ber jinavbirina dijberên xwe. Di sala 1989`an de Dr. Qasimlo û hevalên wî li bajarê Viyenê hatin terorkirin.

Di sala 1990`î de Kazim Recewî ku yekem nûnerê Îranê di NY de, piştî şoreşa gelên Îran bû, li bajarê Jinêvê li nêzî mala xwe bû armanca şeş gulleyan û hate terorkirin.Di sala 1991`an de Şapûr Bextiyar li Parîsê de bo cara duyem hate terorkirin, ku navbirî jiyana xwe ji dest da. Navbirî kêmtir ji 40 rojan serokwezîr bû, ku şoreşa gelên Îranê rû da. Di sala 1992`an de Dr. Şerefkendî û hevalên wîli bajarê Berlîn a Alaman de hatin terorkirin. Cuda ji van kesayetiyên navdar bi dehan kesên din li derveyî welat û heta kesên wekî Daryoş Firûher û Perwane Firûher di navxwe de jî hatin terorkirin, ku ên di navxwe de hatin terorkirin wekî kuştinên zincîreyî hatin binavkirin.



Herçend piştî biryara dawiyê ya dadgeha Mîkonosê derheq dosiyeya terorkirina Dr. Şerefkendî û hevalên wî û destbiserkirina tawanbaran û tawanbarkirina rêberên herî payebilind yên rejîmî Îranê wekî biryarder û birêveberê terora Mîkonosê, û têkçûna pêwendiyên di navbera gellek ji welatên Ewropayî digel rejîma Îranê, em şahidê teroreke wisa ya rêberên hizb û girûpên siyasî ên dijberî Komara Îslamî ya Îranê li derveyî sînorên Îranê nebûn, lê kesên nêzîkî Ehmed Nîsî û çavdêrên siyasî ser vê baweriyê ne ku ew teror karê rejîma Îranê ye, û gumana vê heye ku rejîm cardin dest bi terorkirina dijberên xwe bike.

**»»» Dom nûçeya manşetê**

Her piştî vê erdhejê, berpirsyarên rejîma Îranê dest kirin bi dana diruşman,û beşek ji wan serdana herêmên erdhejlêdayî kirin, lê di rastî de ne ji bo xizmetkirina bi lêqewimiyan, belkû ji bo dem derbazkirin û wênegirtinên sêlfî, û dana diruşmên derevîn.
Cuda ji vê yekê, berpirsyarên rejîma Îranê bedela gehandina alîkariyan, derdûna pirr ji kerb û kîn û nefret a xwe eşkere kirin û pêşiya wan alîkariyan girtin ku Kurdistaniyan ji bo xûşk û birayên xwe yên erdhejlêdayî dişandin.

Ji vê yekê jî pêkenoktir ew bû ku bankên hikûmeta Îranê di vê dema herî nexweş de, bi şandina SMS`an xelkê erdhejlêdayî agehdar dikirin ku dibe deynên xwe yê "Xaniyên Mêher" bidin,ku di rastî de ew xaniyên sist û ne standard, yek ji sedemên zêdebûna rêjeya qurbaniyan bû.

Her bi sedema van xemsariyên rejîma Îranê bû, ku çendîn hevwelatî serbarê vê ku ji karesata erdhejê rizgar bibûn,lê bi sedema nebûna stargehekê û kelûpelên germkirinê û dewa û dermanan, li navçeyên Ezgelle û Deşta Zehaw û Selasa Bawecanî rastî bellaya Komara Îslamî hatin, û tenê û tenê bi tawana Kurdbûnê jiyana xwe ji dest dan.

Lê ew hewlên rejîmê ser negirtin û gel biryara xwe ya dawiyê da,û her li yekem demên paş erdhejê li piraniya bajarên Kurdistanê ve Kurdistaniyan zendê xwe hildan,û li benda rejîma dijîKurd nesekinîn, û dest kirin bi komkirina alîkariyên dehan tonî ji xwarin û cilûberg û derman û hewcehiyên rojane.

Erdheja dilêş ya li gund û bajarên Kirmaşanê bû sedema vê ku gelê Kurd cardin biselimîne ku ew pişt û penayê yektir in.

Lûtkeya vê helwetsa neteweyî û mirovî û nîştimanî wê demê bû ku hemwelatiyekî xelkê Bokanê bi navê Ebûbekr Me`irûfî di dema gehandina alîkariyan de, di encama vergeriyana trombêla xwe de, jiyana xwe ji dest da.

Her ji cihê bûyerê ve gund bi gund û bajar bi bajarên Kurdistanê li ser rê bi hilgirtina pilakardên hilgirê diruşmên neteweyî û şoreşgerî pêşwazî ji termê vî hevwelatiyê Kurd kirin, û ew wekî şehîdê xwebexş bi nav kirin, û bi vî awayî hemaseyeke din afirandin û îradeya bilind ya neteweyî a xwe selimandin.

Di rastî de vê pêşwaziya dehan hezar kesî serbarê hemû zextên rejîma Îranê,hem nîşan da ku hişyariya neteweyî gihîştiye asta herî jor, û herwisa ew yek peyamek jî bû bi rejîma dijîgelî, ku ew nikarin bi pîlanên xwe yên dijîKurd, Kurdên erdhejlêdayî bi tenê bihêlin, û wan stûxwarê alîkariyên xwe ên herî kêm bikin.

Her di vê derheqê de Deftera Siyasî ya PDKÎ jî daxuyaniyek weşand ku di beşeke vê daxuyaniyê de hatiye: "Deftera Siyasî ya PDKÎ spasiyeke taybetî li hemû tex û qat û girûpên nava civaka Kurdistanê û neteweya xwedîmoral û çav vekirî û li ser hest ya Kurd dike, ku karesat li pey karesat û bûyerên nexweş li pey hev, bi ser wan de hatin, lê ew bi ew qasê moral û vîn û îradeyê ve pêkve bûn, û bi yekrêzî û hevsozî û hevpêwendiya mirovî û neteweyî destanrêsî afirandin, û ne tenê cîhan sersamî îradeya xwe kirin, belkû waneyên pêkvebûnê gehandin guhê têkoşerên xwe jî.

PDKÎ şanaziyê bi neteweyeke weha dike, û di hemberî îradeya neteweyî û hesta pak û bêgerd ya mafxwaziya wan de serê hurmetê ditewîne". Hêjayî basê ye ku deqa vê daxûyaniyê di rûpela 5 de hatiye weşandin.

## Mamosta bi zorî pere ji dersxwanan werdigrin

**Di doma şîpela wergiritna pere ji dersxwanan, vê carê goviya bajarê Rebetê jî hat.**

Li gora nûçeya gihîştî malpera “Kurdistanmedia”yê, di çend rojên derbazbûyî de, berpirsên xwandingeha “Ferheng” a bajarê Rebetê, bi şandina nameyeka gazîkirinê ji bo malbabatên dersxwanên vê xwandingehê,ji wan daxwaz kirine, tevî serdana malbatên wan ji xwandingeha zarokên xwe, ji zarokên wan re gotine ku dibe aliyê kêm 50 hezar Tûmenî alîkariya pere ji xwandingehê re bikin.

Ev hewla rejîmê û berpirsên xwandingehan, di çend salên derbazbûyî de, di çend bajarên din ên Kurdistana Rojhilat de jî rû daye, û bi awayekî berdewam bûye sebeba zêdebûna givaşên abûrî li ser malbatên dersxwanan û herwiha nerazîbûna malbatên wan peyî xwe re aniye.

Li gora zanyarayan di salên derbazbûyî de beşek ji dersxwanan ji ber destengbûnê û piştî berdewambûna berpirsên xwandingehan ji bo wergirtina pere, neçar bûne xwandinê bi cî bihêlin.

Ev daxwazane di halekî de ji malbatan tê kirin, ku li gora xala duyema a serekî û siyem a yasaya bingehîn a rejîma Îslamî a Îranê, erka dewletê ye da ku hewcehiyên perwerdehiyê di hemû astên xwandinê de dabîn bike, lê belê di encamê de dibînin ku ev yeka tenê dirûşmek e.


بسمه تعالی
دعوت نامه
جناب آقای ولی دانش آموز کلاس
با سلام وتقدیم احترام بدینوسیله از جنابعالی دعوت بعمل می آید که جهت اهداء کمک و مساعدت مالی شخصا به این
آموزشگاه مراجعه فرمایید.
پیشاپیش از حسن نیت و همکاریتان نهایت تقدیر وتشکر را داریم.
ضمناً با توجه به مباحث مطرح شده در اولین جلسه انجمن اولیا ومربیان وتصمیم اعضاء انجمن حداقل کمک ۵۰ هزار تومان می
باشد.
❖ زمان : درجریان هفته
❖ مکان : دفتر آموزشگاه فرهنگ

Herwiha di çend rojên derbazbûyî de her mînakeke bi vî rengî di çend gundên girêdayî ê bajarê Rewanser a ser bi parêzgeha Kirmaşanê de jî hatibû dîtin.

## Beşa herî zêde a îdamkirî û binçavkiriyan di Îranê de kurd in



**Sekreterê giştî ê NY raporek derheqê rewşa mafê mirovan di Îranê de belav kir.**

Li gora rapora gihîştî Ajansa “Kurdpa”yê, “ Antonio Guterres”, sekreterê giştî yê NY di rapora xwe ya vê dawiyê de, derbarê rewşa mafê mirovan di Îranê de, îşare bi binpêkirina berfireh a mafên mirovan di Kurdistana Rojhilat de kiriye û ragehandiye ku: Beşa herî zêde a îdamkirî û binçavkiriyan di Îranê de ji kurdan pêk tê.

Di vê raporê de hatiye ku, piranîya kesên ku hatine îdam û binçavkirin ji kurdan pêk tê, û di 5 mehên destpêka îsal de, zêdeyî 90 kolberên Kurd hatine kuştin, û birîndarkirin. Her di vê pêwendiyê de, “Teymûr Elyasî” nûnerê Komela Mafê Mirovan a Kurdistan a Îranê di Jinêvê de ragehandiye ku, ev saziya mafê mirovan çavkaniya serekî a raporên saziyên NY di pêwendî digel binpêkirina mafê mirovan di Kurdistan a Rojhilat de ye.

Li gora amarên ku hatine tomarkirin ji aliyê navenda amara Ajansa “Kurdpa” yê ve, ji destpêka meha Kanûna Paşîn heyanî meha Çirriya Pêşîn a îsal, 2484 mînakên binpêkirina mafê mirovan di Kurdistan a Rojhilat de hebûne, ku li gora vê rêzbendê, 1828 hemwelatî hatine binçavkirin, û 177 kolberên Kurd jî hatin kuştin û birîndarkirin, û herwiha 64 hemwelatiyên Kurd ên din jî bi sedemên curbicur di girtîgehên Hikûmeta Îranê de hatine îdamkirin.

## Sirr û seqemê jiyana jineka Kurd girt

**Jineka Kurd ku bi sebeba erdheja çend şevên derbazbûyî di Kirmanşanê de, mala wan herifî bû, di yek ji gundên bajarê Selasa Bawecanî de ji ber sirr û seqemê jiyana xwe ji dest da.**

Li gora rapora gihîştî malpera Kurdistanmedia jina kurd a bi navê, “Xawer Xosrewî” xelkê gundê “Nîwekare” a girêdayî Bawecanî ku ser bi malbateke naskirî di deverê de bû, bi sebeba nebûna stargehekê ji ber sirr û seqemê jiyan xwe ji dest da.

Bi sebeba bûyera sirûştî a erdheja di çend rojên derbazbûyî de, gundê Nîvekare, ji sedî 80 ji avahiyên wê hiloşyane.

Li gora nûçeya gihîştî malpera Kurdistanmedia, li ber erdhejê 8 hemwelatiyên wî gundî jiyan xwe ji dest dane, û 35 hemwelatiyên din jî birîndar bûne.

Li gora hindek zanyariyên din, her bi wan sebeban di çend şevên derbazbûyî de, çend zarokêm kêmtemen jî di bajarên parêzgeha Kirmaşanê de jiyan xwe ji dest dane.



Xelkê lêqewimî yên parêzgeha Kirmaşanê daxwaz kirine da ku canê hemwelatiyên wî bajarî biparêzin, lê belê rejîma Îranê heyanî niha bi awayekî micid amade nebûye xizmetgizariya mirovahiyê, ku erka hikûmetê ye, radestî lêqewmiyên wê bûyerê bike.

## Rejîma Îranê pêş ji nûçegihanên biyanî digire

**Piştî rûdana edhejê li Kurdistana Rojhilat de, berpirsên rejîma Îranê pêş ji nûçegihanên biyanî digirin, daku bûyerên edhejê ji bo derve belav nekin.**

Li gora raporên belavbûyî, tevî evê ku cîhan û berpirsên pirraniya welatan hevxemiya xwe ji ber qurbaniyên edheja ku di bajarên Kurdistanê de çê bûye anîne ziman,û berpirsên rejîma Îranê weke hemû carê ketine dijminatiyê, û pêş ji nûçegihanên biyanî digirin û heta nûçeyên rast ên vê bûyerê jî belav nakin.

Her di vê pêwendiyê de, “Tomas Îrd Birînk” nûçegihanê New York Times a Amerîkî, di peyameke “Twitter”ê de belav kiriye, ku digel bûyera edheja ku di rojava ya Îranê de çê bûye, îzin nedan ku ev nûçegihanên din yê ku di Tehranê de dimînin serdana cihê bûyera edhejê bikin.

Edhej di demjimêr 8:18 deqeyan a şeva 21`ê Xezelwera 1396`an de qewimiye, û heyanî niha li gora amarên hundir zêdeyî 500 hemwelatiyên bajarê Kirmaşanê jiyana xwe ji dest dane, û nêzî 6 hezar hemwelatiyên din jî birîndar bûne.



Ev edheja di parêzgehên Loristan, Îlam, Kirmaşan, Sine û Urmiya Rojhilata Kurdistan de qewimiye, û li pirraniya bajaran de, bi taybet bajarê Kirmaşanê xesarên malî û canî lê ketine.

# Helbestvan Şêx Mîzbah helbesta Kurdî nas kir û pê re xwe nas kir

**Helbestvan Şêx Mîzbahê Farqînê, alîm û helbestvanên kurdên weke Şêx Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî, Siyahpoş, Melayê Bateyî, Şêx Ebdurrehmanê Aktepeyî, Feqiyê Teyran, Tîrêj û Cegerxwîn bandor li wî kir û ew jî bû yek ji dîlgirtiyê helbesta Kurdî.**

Gotenek pêşiyên Kurdan dibêje ku temen wek duvê masî ye, dişemite ji destê mirov û diçe... Wekî heval û hogirên xwe temenê Şêx Mîzbahê Farqînê jî bi ser heştêyan ket; lê weka duh di bîra wî de ye ku ew 14 salî bû û ji qalikê zabeşan keştiyan çêdikir û datînî ser ava kaniya mezin.
Şêx Mîzbahê Farqînê niha 80 salî ye lê gelek haval û hogirên wî di bin erda sar de ne ku Şêx niha li ser erdê digire.



Gelek helbestvanên ku niha ji gelê Kurd re bûne wek kêlên zêrîn, çawa eşqa helbesta Kurdî niqutandin dilên xwe di medreseyên Kurdî de, Şêx Mîzbah jî di salên feqatiyê de bi helbesta Kurdî re hevnas bû.

Şêx Ehmedê Xanî, Melayê Cizîrî, Siyahpoş, Melayê Bateyî, Şêx Ebdurrehmanê Aktepeyî, Feqiyê Teyran, Tîrêj û Mele Şêxmûs ango Cegerxwîn bi helbestên xwe dilê Şêx Mîzbah guvaştin û ew jî bû yek ji dîlgirtiyê helbesta Kurdî.Şêx Mîzbah helbesta Kurdî nas kir û pê re xwe nas kir, ew êdî Kurd bû, kurdekî xurt, helbesta Kurdî her wisa doza Kurdî bû jê re, êş azar û xem; carna jî şoreş, serhildan û hemaset li ser tona helbestên wî xwe kifş dikir.

Di nav kuçe û kolanên teng de, her roj rêwî ye Şêx, di her bihostek de ew serboriyek xwe bi bîr tîne, Farqîn û Amed, her du bajarên qedîm ku di bin kevirên wan de sir û efsûna hezar salan veşartî.

Şêx Mîzbah helbestan dixwîne ji keç û xortên Kurdan re, şîret û tembiya li wan dike, dibêje ku bizanin, bixwînin, fehîm bin, bixwazin, bêjin, winda nebin, ji ber ku gelek nexêrxazên we hatin û çûn; lê em hîn li vir in. Rudaw

# Romana Cihûyên Kurdistanê hate nivîsandin



**Şûrê Mûsa navê romana nû ya nivîskar Sabîr Reşîd e û biryare di demekê nêzîk de bigihe bazaran.**

Romanivîs Sabîr Reşîd ji Rûdawê re ragihand, roman ji çar beşên sereke pêk tê û di nava her beşekî de de beşên cuda hene.

Sabîr Reşîd amaje bi wê yekê kir, ku temaya sereke ya romanê li ser jiyana Cihûyên Kurdistan û Iraqê ye û bûyerên di romanê de hatine behskirin jî di navbera salên 1947 û 1951ê de li bajarên Hewlêr, Silêmanî, Kerkûk û navçeyên Koyê û Şeqlawa derbas dibin. Lê dema romanê bi flaşbak û vegotin heta roja me ya îro dirêj dibin.
Romana Şûrê Mûsa 192 rûpel e û biryare di demekê nêzîk de ji aliyê Rêveberiya Ragihandin, Çap û Belavkirinê ya Hewlêrê ve tê çapkirin û belavkirin.

Nivîskar Sabîr Reşîd, di sala 1957ê li navçeya Şeqlawe ya Hewlêrê ji dayik bûye. Di sala 1981ê de Koleja Yasa û Ramyarî ya Zanîngeha Bexdayê xilas kiriye. Di sala 1981ê de dest bi nivîsînê kiriye. Sabir Reşîd sernivîserê kovara "Mem" û endamê desteya nivîskarên kovara "Dengare" bû ku li Şeqlawe derdiketin. Herwiha rêveberê nivîskarên kovara "Herêma Kurdistan" û endamê desteya nivîskarên "Nivîskarên Nû" ye.

Romanivîs Reşîd heta niha 15 pirtûkên lêkolîn û rexnekirinê nivîsîne û çend pirtûkên wê yên roman, çîrok û lêkolîna wêjeyî jî ji bo çapê amade ne. Rûdaw

# Konsêrta Kamkaran û Şehram Nazirî ji bo alîkariya lêqewimiyên erdhejê

**Li Telara Wehdet a Tehranê konsêrtek bo qurbaniyên erdheja Rojhilatê Kurdistanê birêve çû, ku ji aliyê hunermendê Kurd Şehram Nazirî û koma mûzîkê ya Kurdî ya Kamkararan ve hatibû sazkirin.**

Konsêrt 2 saetan berdewam bû û gelek xelk têde beşdar bûn. Şeva Yekşemî 12ê Mijdarê erdhejeke bihêz a bi pileya 7.3 Rîxterê Başûr û Rojhilatê Kurdistanê hejand.
Li Rojhilatê Kurdistanê, ji aliyê hikûmeta Îranê ve amarên ciyawaz li ser hejmara qurbaniyên erdhejê hatine belavkirin, bi awayekê ku di 3 rojên destpêkê de aliyên pêwendîdar ên Îranê hejmara kuştiyan bi 530 kesan dabûn xuyakirin, lê belê niha li gorî amara dawî yak u hikûmeta Îranê ragihandiye, di encama erdheja Kirmaşanê de 437 kesan canê xwe ji dest dane û zêdetirî 12 hezar kes jî birîndar bûne.

Herwiha li Başûrê Kurdistanê jî di encama erdhejê de 8 kesan canê xwe ji dest dan û 321 kes jî birîndar bûn. Rûdaw



# Zimanê Kurdî

## Qursên Kurdî, A. Karabax

2-

b. Ji yên bergehê : Bi vir de, bi wir de, ber ve, serejêr, serejor, ber bi, ber bi ve, ji vî alî ve, ji wî alî ve, ji vê hêlê ve, ji wê hêlê de, hwd.

Mînak 517/1 : Hokerên cihê : Çend bikaranîn :

a. Xama xezal li wir diçêriya. b. Nêçîrvan li jêr bû, lê dinêriya.

c. Xezal beziya paş zinarê, li çepê rawestiya. ç. Nêçîrvan çû dereke din.

Mînak 517/2 : Hokerên bergehê : Çend bikaranîn :

a. Xama xezal serejêr rewiya. b. Nêçîrvên, ji wî alî ve da dû wê.

c. Paşê xezal bûn didu, serejor kirin. ç. Nêçîrvan bi wir de vegeriya.

4. Hokerên pirsiyarî(pirsiyariyê) :

a. Ev hoker ji aliyê pirsiyariyê ve çalakiyan didin nasîn.

b. Peyvên van, ji peyvên pirsînê yên ku bi erkên hokerî bikar tên pêk tên.

Ji hokerên pirsiyarî : Çawa, çilo, bi çi, kengî, çi demê, çi wext, ka, li ku,li kuderê, ji ku, ji kuderê, bi ku ve, ji ku ve, çiqas, qasî çi, wek çi, hwd.

Mînak 518 : Hokerên pirsiyarî : Çend bikaranîn :

a. Çavên Gulçînê çawa ne? b. Nalîn çi demê dixebite?

c. Xama xezal li ku diçeriya? ç. Nêçîrvan bi ku de vegeriya?

5. Hokerên mêjerê(çendaniyê) :

a. Ev hoker ji aliyê mêjerê ve çalakiyan didin nasîn.

b. Bo kifşkirina van, pirsên bi (çiqas, qasî çi, wek çi, hwd) li lêkerên pêveberî tên kirin.

Ji hokerên mêjerê : Kêm, kêmtir, zêde, zêdetir, bêtir, kêm û zêde, pir, herî,hin, hinek, bes, sirf, bi qasî, bi çendî, ewqas, gelek, demeke dirêj, keliyekê,yek bi yek, deh bi deh, zehf, zor, hwd.

Mînak 519 : Hokerên mêjerê : Çend bikaranîn :

a. Nalîn kêm dixebite. b. Rojda ne tiral e, kêm û zêde dixebite.

c. Kalê wê jî ewqas dixebite. ç. Wî kalî, dar pênc bi pênc jimartin.

Ji helbestan : .../ Rehên zerhimîn yek bi yek bi xwe de hatin/.../A. Karabax

B) Di hinek erkan de bikaranîna hokeran :

Mînak 520 : Ji bo wan çend bikaranîn :

1. Di awayê rewşîn de :

a. Gulçîn, bi xebatê bi ser ketibû. b. Ew ji dil de dixebitiya.

## Tiştonek



**A: Mahir Berwarî**

Metelokên rewanbêjiyê

Ev beşe girêday rewanbêjiya peyv û hevoka ne, peyvên wek hev lê bi mana ji hev cuda bi rengekê can/xweşik didene ber hevdu şêlubêlê dixene têda ji bo mirov pê nezane.

- Ka noka ne, ka noka ne, çiyê nezane hêwan e.
(* Ka noka ye)
- Pirr tan e, pirr tan e, çiyê nezanit hêwan e.
(*Pira ji tanî avakirî).
- Çîxar û gû se. (* Çîxar : Nav e)
- Ka çu ma dan. (* Ka û dan)
- Ka çû ma nok. (* ka û nok)
- Keru dirêjke. (* Kerû !! eve dirêjkê kalka çêkirnêye)
- Tiştekê mino tiştok e, yê bi kolav û dersok e, navê wî zirçepok e, kure nebe bêj noke. (* Nok e)
- Tiştekê min heye, mîza. (* Mîh za)
- Tiştekê min heye, heqaska? (* Heqas ka?)
- Pêçû maşîn. (* pê çû, ma şûn)
- Mozterulîçe. (* moz, ter î lîçe)
- Giwêt heredune. (* giwêt her ew du ne.)
- Kilkî barîk xoy esture, kere tendûre. (* tendûr/ tenûr)

Têdîtin: Amadekar destkariya devoka metelokan nekiriye

**Xwendevanên hêja! Hûn dikarin bersiva tiştonekan bi riya E-Maila Agiri2003@gmal.com ji me re bişînin**



# Agirî

- Rojnameya “Agirî” di van malperên jêrên de bixwînin:
- www.Kurdistanmedia.com
- www.Agirimedia.org
- rojnamaagiri@gmail.com
- www.facebook.com/Agirikirmanji

Navnîşana derveyî welat: AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE E - Mail: Agiri2003@gmail.com Hejmar (314)


## Çend wêne ji erdheja li Rojhilata Kurdistanê















